Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 42
30'ê June 2006
Buha: 150 Tûmen




Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Hevdîtinên Birêz Mistefa Hicrî li Ewropa Berdewam in

Birêz Mistefa Hicrî di doma gera xwe ya ji bo derveyî welat, li Fransayê bi gelek kesayetiyên mezin yên wî welatî re hevdîtin pêk anî. Her wiha çend rojan berî niha rêzdar Mistefa Hicrî bi rayedarên bilind yên Parlemana Ewropa re jî hevdîtin pêk anî. Agahiyê pêtir li ser malpera me bi dest bixin... **Rûpela 9**

# Li Parîsê Konferansek navneteweyî li ser Pêşeroja Îranê

Roja 16.06.2006'an, konferanseke navneteweyî di bin navê **Îran ber bi kuderê ve diçe** di yek ji holên Parlemana neteweyî ya Firansayê hate lidarxistin. Ev konferanse bi alîkariya bîroya nûneriya PDK Îranê li derveyî welat û bi hinceta sefera birêz Mistefa Hicrî, sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji bo firansayê û bi cehd û hewildanê cihê rêzê yên Enistîtûya Kurd li Parîsê hate pêkanîn. Basên bingehîn ên konferansê bi ser sê mijarên jêr pêk hatibû:

1. Civaka Îranê ya îroyîn
2. Pirsa neteweyên ne Fars
3. Helwesta demokrasiya Rojava li hember pêkanîn, kirîz û bernameya Etomî ya Îranê.



*Mistefa Hicrî û Dr. Kendal Nezan di Konferansa Parîsê de*

Li ser wan sê mijarên bingehên yên Koneferansa han gelek kesayetiyên Kurd, Îranî û Ewropî axivîne. Rapora berfireh ya Konferansê li ser malpera me bixwînin:
**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/nuce/file/13.php**

Hevpeyvîna "More SEMO", Nûçegihanê Rojnameya "Liberation"ê,
## Tevî Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê

Siyasî R. 3




## Kirîna Demê Heta Gihîştin Bi Çeka Etomî



Siyasî R. 2

## Pîroz Be 27'ê Cozerdanê, Salvegera Avakirina Dengê Kurdistana Îranê



Siyasî R. 2

## Demokrasî, Biha Û Piratîka Wê



Siyasî R. 6

## Serdemê Dayîk Serdestiyê



Civakî R. 8

## BIYANÎBÛN



Çand R. 10

Birêz Rostem Cehangîrî:
## "Rasîzm Nagihîje Astekê Ku Rêberiya Her Du Gelên Kurd Û Azerî Bi Dest Ve



Hevpeyvîn R. 4-5



## Ji Olên Mirovatiyê Ola Konfûşiyos

R. 9

# Kirîna Demê Heta Gihîştin Bi Çeka Etomî

**Ebdula Behramî**
**Werger: Azad Kurdî**

Piştî pêşkêşkirina pêşniyarên hayder ên welatên Ewropayî bi rejîma Îslamî ya Îranê û neçarbûna Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê ji bo qebûlkirina gotûbêjên mercdar tevî rejîma Îranê, dîsan jî delîveyeke din ji bo bidestveanîna demê ji bo vê rejîmê pêk hatiye.

Rejîma Îslamî ya Îranê ku hetanî niha jî bi tu awayekê neçûye bin barê daxwaziyên Amerîka û hevalbendên wê yên Ewropî, ji aliyekê bi veguhastina vê binbest û dijheviya kurd Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di holê de ye û ew guhartina rêjeyî ya di helwesta Koşka Sipî de çê bûye, dîsan mijûlê xapandina civaka navneteweyî û domandina siyaseta diyalog ji bo gotûbêjê û aqibetkirîna demê ye. Taktîka herî nû ya rejîmê di vê derheqê de pêkhatiye ji daxwazkirina derfeteke ne diyarîkirî û gelalekirina komek pêşniyaran li hember wan pêşniyarane de ye ku çend rojan berî niha Xawiyer Solana ji aliyê welatên 5+1, bi navê besteya pêşniyarên hayder pêşkêş kiribû. Diyar e eva ku di vê derbarê de ji çavê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê ne veşartî ye, tenê çavnihêr hêlana wan û dûrxistina her çiqas pitir ya civîna Konseya Ewlekariyê û ji rêya vê yekê jî bidesxistina demeke pitir ji bo domandina bernameyên Etomî yên



ber guman e û bes.

Her çend ne ron û zelal e ku bersîva serokên rejîma Îslamî bi pêşniyarên Ewropiyan dê çi bibe û gelo rejîm bi qebûlkirina vî mercî, wate sekinandina bernameyên xwe ên Etomî, dê tevî Amerîkayê bikeve gotûbêja du alî yan na? Lê belê li vir jî ev gumane gelek xurt e ku rejîma Îslamî ya Îranê bi qebûlkirina westandina demekî ya bernameyên Etomî ên xwe û destpêkirina gotûbêjên rasterast bi Koşka Sipî re, vira jî dê tenê armanca bidestveanîna dem û wext hebe û bes. Çunkî eva rastiyek e ku rejîma totalîter û serkutker ya Îslamî a Îranê çeka Etomî bi karta mana xwe dizane û wisa difikire ku ji rêya bidestxistina çeka Etomî dê bibe hêzeke mezin ya herêmî û welatên cîhanê û heta parek ji welatên Ewropayê jî bixe bin gefa çeka Etomî û hevdem tevî vê yekê jî dikare bê tirs ji nerazîbûna civaka navnetewî, dengê civatên nerazî û azadîxwaz jî hin dîke bifetisîne.

**Encam:**

1. Heke Amerîka bi rawestandina demekî ya pirogramên Etomî yên Îranê razî be û rasterast tevî Îranê gotûbêjan pêk bîne, eva rejîm di vê taktîkê de (kirîna dem) serkevtî bûye û eva paşdekişaneke mezin di helwesta Amerîkayê de ye.

2. Gelo ev helwesta nû ya Waşîngtonê û welatên berevankar ên Îranê di Konseya Ewlekariyê dê bîne ser vê baweriyê ku dest ji piştgirîkirina Îranê ber bidin yan aliyê kêm bê alî bin?

Lê di haletekê de ku tu yek ji van haletane ne qewimin, tê pêşdîtin kirin ku berengarbûn tevî siyaseta mezinxwaz ya Etomî a Îranê bikeve derveyî Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û Amerîka û hevalbendên wê dê naçar bibin bi xwe berengarî rejîma Îslamî ya Îranê bibin.

Gelo di vî haletî de jî di berjewendiya Rûsiya û Çînê de ye ku piştgiriyê ji Îranê bikin?

# Pîroz Be 27’ê Cozerdanê, Salvegera Avakirina Dengê Kurdistana Îranê

**Siyamend Terbî**

26 salan berî niha anku di roja 27’ê Cuzerdana sala 1359’ê Rojî (17.06.1980)’an de **Dengê Kurdistana Îranê** bi peyama rêberê şehîd Dr. Qasimlo dest bi weşana xwe kir.

Dengê Kurdistana Îranê di çaxekê de hate damezirandin ku Kurdistana Îranê ji hemû aliyekê ve ketibû ber êrîşa serbazên Îmamê Zeman û ji hêla kalê Cemaranê ve Fitvaya Cîhadê (xeza) bi dijî gelê Kurd hatibû derkirin û Pasdarên Îslama Naba Mihemedî bo bi destveanîna kilîta biheştê xwe ji tu cinayetekê li Kurdistanê de nediparastin.

Dengê Kurdistana Îranê di demekê de hate damezirandin ku sansoreke bê mînak di her aliyekê ve ketibû ser Kurdistanê û çi nûçegihaneke serbixwe, azad û biyanî nedikarî seredana Kurdistanê bike û rastiyan bide weşandin. Ev nûçe û raporên ku rejîmê jî derheq Kurdistanê belav dikirin bi tevahî berevajî û dûr ji rastiyê bûn.

Dengê Kurdistanê di demekê da hate avakirin ku dorpêça aborî a xurt li ser Kurdistanê hatibû danan û heta berahiya her cure derman û alavên nojdarî jî bo wê herêmê dihate girtin.

Di vê qonaxê de tenê Dengê Kurdistanê bû ku tevlî dengê çeka Pêşmerge bû û hawara mafxwazane û belengaziya gelê Kurd digehande guhê bîr û raya giştî û cinayetên Rejîma kevnarperver a Komara Îslamî aşkira dikir.

Ev dengê rastîn û zelal bû ku li ser soz û peymana xwe li hember gelê Kurd da li jêr topbaran û mûşek û bombeyan de, bi ser û berî barnamên xwe diweşand û xincî du qonaxên diyarî kirî û bi ser da sepandî bo demekê jî ji xebatê



nesekiniye. Di pêşvebirina asta hişyariya siyasî, di warê çandî, hunerî, civakî, û hwd ... li gor îmkan û şiyanê xebitiye û bûye dengê rastîn yê gelê Kurd û zêdebarê vê zext û givaşa rejîmê û parazît (şêlû kirina) ku Rejîma Komara Îslamî di heyamê van 25 salan de êxistiye ser wê weşanê, dîsan jî di hundira hogir û guhdarên xwe de cih girtiye û bi evîneke zaf ve hogirê wî dengî bûne.

Dengê Kurdistana Îranê, dengê hezaran dayîkên cerg sotî, birayên pişt şikestî, bûkên dest bi hene, gernasên reş çalên rejîmê, dengê Pêşmerge û gişt gelê Kurd e.

26’emîn salvegera avabûna Dengê Kurdistana Îranê ji gelê Kurd pîroz be.

# Hevpeyvîna "More SEMO" Nûçegihanê Rojnameya "Liberation"ê, Tevî Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê

Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ku ji bo Îraneke Federal û dûr ji desthilata mesebî xebatê dike, dibêje: "Demokrasî ji rêya leşkerî ve cihgir nabe".

Her du sekreterên berî wî, Dr. Ebdulrehman Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî jî di salên 1989 û 1992'an li Viyena û Berlînê bi destê torên sîxorî û ewlekariya Îranê hatin şehîd kirin. Birêz Mistefa Hicrî li derveyî Îranê de rêveberiya Partiya xwe dike. Ev Partiye (PDK Îranê) yek ji partiyên herî bi pêşîne û bi dîrok û partiya herî bi pirestîj ya Kurdî di Îranê de ye. Serbarê tepeserkirin û hevrikiyên di navbera Kurdan (ku 10 ji sedê ya nifûsa Îranê pêk tînin) û hêzên radîkal yên din weke Komelê de, PDK Îranê yek ji bingehên Opozîsyona demokratîk e.
Ev du hêzane (PDK Îranê û Komele) tevî partiyên Belûç, Azerî, Ereb û Turkman di kongireyekê (Kongireya Neteweyên Îrana Federal) de, ku kêmaniyên neteweyî yên vî welatî 65 ji sedê ya hemû nifûsa Îranê pêk tînin, beşdar in û ji bo Îraneke Federal û Demokratîk û bi dûr ji desthilatdariya mesebî di xebatê de ne.
Çend mehek e ku şer û pevçûnên leşkerî û her wiha meş û xwenîşandanên aştîxwazane dûr ji tund û tûjiyê di hin cihên welat, li Bakûrê Rojava(Kurd û Azerî), li Başûrê Rojava(Ereb) û di Başûra Rojhilatê Îranê(Belûç) ber bi zêdebûnê ne û eva jî di halekê de ye ku hikûmeta Tehranê, Amerîkayê bi sebebê hilkirin û geşandina şer û dijberiyê di navbera neteweyên Îranê de tawanbar dike.

Birêz Mistefa Hicrî dibêje ku: Neteweyên Îranê êdî vê rewşê qebûl nakin û daxwazkarê bi fermî nasîna mafên demokratîk û wekhev yên xwe ne.

Eva jî bi wateya bi fermî nasîna mafên demokratîk yên neteweyan û parvekirina mafê wekhev di navbera wan de, bi baldan bi wê ku çendîn sedsal e em bi hev re dijîn, dê bibe sedema yekîtiya axa welat.

Bi awayekê ku ger rewşa nihoyî dom bike, dê bibe sedema haydana bîr û rayên cudaxwazane.
Xwast û alîgiriya welatên derve ji bo guhertina rejîmê jî ku piştî têkçûna reformxwazan bê hêvî bûne, roj li pey rojê di xurtbûnê de ye. Ji aliyeke din bi baldan bi tela û bela bûn, bêhêvîtî û dilsariya li nav refên Opozîsyona demokratîk de, hevkariya hêzên kêmaniyên neteweyî girîngiyeke taybetî heye.

Navhatî li doma axavtina xwe de da zanîn ku: PDK Îranê li ser berxwednî û xebata aştîxwazane a xelkê Kurdsitanê hesabê dike, bi taybetî dema ku bi çavên xwe destkevtên weke azadî û demokrasiyê dibînin û dizanin ku li gor van guhertinên ku di Kurdistana Îraqê de pêk hatine û xelkê Kurdistanê ji Otonomiyek kemilî bi mifah in, lewre di cehda bi rêxistina refên xwe ne.

Di rastî de rêberiya PDK Îranê ji sala 1992'an ve, bi derketin û nemana desthilata rejîma Bees bi ser Kurdistana Îraqê de, di wê herêmê de cihgir bûye. Serbarê wê jî, PDK Îranê ji rêya radyo û televîzyoneke esmanî ku li Rojavayê de hatiye damezrandin, programên xwe diweşîne.

Di çaxekê de ku alozî û rikeberanê di pêwendî tevî programên Etomî yên Îranê di rojevê de ye, birêz Hicrî dijî her terze siyaseteke nerm li hemberî rejîma Îranê ye û tekezê dike ku ger Îran di encamê de li hember givaşên Ewropa, Rûsya û Çînê de bi awayekê paşve bikêşe(paşdekişiyanê bipejrîne), dîsan jî dest ji programên Etomî yên xwe hilnagire. Ji ber ku ev




terze îmtiyaz dane ji aliyê hikûmeta Îranê ve tenê ji bo kirîna demê ye. Komara Îslamî ya Îranê ji bo parastina desthilata xwe bi her nirxekê jî be li hember gefên Amerîkayê û herweha serwerî û hejmoniya bi ser welatên misilman di hewla bidestveanîna çekên Etomî ye. Birêz Mistefa Hicrî di dawiya heftiya borî de, ji bo pişikdarîkirin di konferansekê de ku Enistîtûya Kurd li Parîsê lidarxistibû, hate Parîsê û dîsan li ser vê yekê tekez kir ku: Demokrasî ji rêya êrîşa leşkerî ve cihgir nabe. Ji ber ku guhertineke rastîn di Îranê de tenê ji rêya bizaveke dûr ji tund û tûjiyê a Opozisyona demokratîk û netweyan misoger dibe. Lê van terze bizavane jî pêwîstî bi hevkarî û piştevaniya siyasî, bi taybet ji aliyê Ewropayiyan ve heye.

Têdîtin: Ev hevpeyvîne di hejmara 7814'an a roja Înê, 23'ê Juena 2006'an di rojnameya **"Liberation"** ê ya Firansayê de hatiye weşandin.

**Werger: Selîm Zencîrî**

## Şandeke Rêxistina "KÛRT-KAV" Ya Kurdistana Turkiyê Seredana Binkeya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Kir

Şandeke Rêxistina "Weqfa Çand û Lêkolînî ya Kudî"(KURT-KAV" ya kurdistana Turkiyê ku pekhatibû ji birêz Celal Bayqira, serokê rêxistinê û cîgirê serokê partiya "HAK- PAR" ê, birêz Letîf Epozdemîr, sekreterê giştî, êareya roja sêşem, 30.03.1385(20.06.2006)'an, seredana binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê kirin û ji aliyê şandeke partiyê ve bi serokatiya birêz Hesen Şerefî, cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û bi hevrêtiya birêz Elî Mêhrperwer, Mihemednezîf Qadirî û Têmûr Mistefayî, endamên Deftera Siyasî û her wiha birêz Rostem Cehangîrî, endamê Komîteya Navendî û birêz Azad Kurdî ji Rojnameya Agiri, pêşwazî ji wan hate kirin.

Di vê hevdîtinê de rewşa jiyana siyasî, aborî, civakî û çandî û wd... ya gelê kurd li kurdistana Turkiyê û her wiha bîr û rayên şanda "Weqfa Çand û Lêkolînî a Kurdî" kete berbas. Helwesta partiyên siyasî yên kurdistana Turkiyê aliyeke sereke ya gotûbêjên hevdîtinê bû ku her du aliyan bi hûrî dîtin û nêrînên xwe ji hev du re şirove kirin. Her wiha şanda PDK Îranê, helwest, raman û siyasetên xwe derheq pirsa çaresernekirî ya Kurd li Turkiyê û hin pirsên din yên jiyana Kurdan li Bakûrê Kurdistanê anî berbas.

Hêjayî gotinê ye ku "Weqfa Çand û Lêkolîn ya Kurdî" yekemîn rêxistina Kurdî ye ku ji aliyê dadgehên Komara Turkiyê ve hatiye pejirandin û navenda wê jî li bajarê Stenbolê de ye.

# Birêz Rostem Cehangîrî:” Rasîzm Nagihîje Astekê Ku Rêberiya Her Du Gelên Kurd Û Azerî Bi Dest Ve Bigire”

**Hevpeyvîn: Xalid Mihemedzade**
**Werger: Selîm Zencîrî**

**Pirsa erdî û hevsînûr bûna Kurdistanê tevî cîranên xwe ji aliyekê dikare wekî doz û pirsgirêkek li pêşerojê de bihê dîtin û ji aliyê din jî dikare bibe bi mînakek ji bo bi hev re jiyana Kurdan bi neteweyên cîran re. Lê ya ku girîng e eva ye ku van pirsane pêwîstî bi hebûna rêberiyeke zana û berpirsiyar di navbera Kurd û neteweyên din de heye, bona vê çendê ku hemû aliyekê ber bi bihevre jiyaneke aştîxwazane û çareserkirina van pirsane ji rêya demokratîk de bibe.**

**Mijara rûniştina vê carê ya me axavtinek li ser van deverane ye ku di navbera Kurd û Azeriyan de li ser Kurdistanîbûn yan Azerîbûna van bas û gengeşe heye û ji bo vê pirsê me birêz Rostem Cehangîrî, him weke endamê Komîteya Navendî a PDK Îranê û him jî weke kesekî şareza û ji dayîkbûyê Bakûrê Kurdistana Rojhilat anî ziman ku ev hevpeyvîne lê derket:**


Rostem Cehangîrî

Birêz Rostem Cehangîrî di destpêka axavtina xwe de vê rastiyê naveşêre ku neteweya Kurd ne tenê derheq doza axa xwe tevî desthilatê, belkî bi van neteweyan re jî pirsgirêk heye ku weke cîran bi salan e bi hev re dijîn.

Di vê derheqê de dibêje: “Bi raya min me ne tenê pirsa xakê digel neteweyên cîran de heye, belkî bi desthilatê re jî heye. Pirsgirêka me bi Azeriyan re yek ji wan e. Navê Azerbaycana Rojava bi ser Kurdistanê sepandine. Ger Azerî hinekê nermrew bin û aqilane ji pirsan binihêrin dizanin ku piraniya Azerbaycana Rojava, him di warê xak û him jî di warê rûniştiyan de Kurd e. Bêguman heke hilbijartinek rast û adîlane bihê kirin, ev rastiye baştir dê ji me re derbikeve. Diyare em ji hemû hilbijartinên ku him li serdemê desthilatdariya Şah de û him jî niha hatine kirin, nerazî ne. Çunkî xelkê nekarîne azadane deng bidin ku vir Kurdistan e yan Azerbaycan? Lê pirsyar eva ye ku me pirsa erdê di gel Azerbaycanê de heye yan na? Di rastî de me ev pirsgirêke heye. Desthilatê jî çi karek ji bo kûr û berfirehkirina van dijberî û hevrikiyane kiriye, cihê behsa me nine.

**Yanî eva ku niha parek zaf ji Kurdan tê de akincî ne û bi Azerbaycana Rojava hatiye bi nav kirin, hûn bi Azerbaycan nizanin?**

“Ez dijî navê Azerbaycanê me ku li ser Kurdistnê hatiye danîn. Lê çima navê vê Parêzgehê kirine Azerbaycan? Eva siyasetek e ku him li serdemê desthilatdariya Mihemedreza Şah û him jî niha berhema şovînîzma Fars e ku her tim dixwaze dijberiyê di navbera van du neteweyan de pêk bîne.

Ez bawer im ku navê Azerbaycana Rojava, navek ne jêhatî û ne rewa ye. Ji bo ku ne mafê Kurdan û ne jî mafê Azeriyan bihê şewitandin, ez pêşniyar dikim navek taybet ji boy bihê danîn ku ew jî dikare **parêzgeha Urmiyê** be. Ji bo van arîşeyên ku derdikevin rojevê, em dikarin ji rêya diyalog û belge û giroveyên dîrokî çareser bikin, çunkî tu pirsgirêkek bi şer, şîdet û tundrewiyê ve çareser nabe.”

**Her wekî di axavtinên te diyar e tu li dijî navê Azerbaycna Rojava li ser wan deverane de yî. Pirsyar eva ye ku we çi fakt û giroveyek heye ku Kurdistnî bûna wan deverane bide eyanê?**

“Fakt zaf in. Bo mînak Kurdên Xorasanê li kuderê re çûne wir? Ku niha jî bi Kurmancî dipeyivin. Niha jî belge û girove hene ku ew ji devera Celaliyan, ji çiyayê Agirî ve bo berevanî ji sînorê Îranê bo Xorasanê hatine veguhastin, lê merema bingehîn ya wan siyaseta dijî Kurd û armanca kêmtirkirina nifûsa Kurdan li van herêmane de bûye. Şoreşa Xanê Lep Zêrîn, Dim Dim, Şoreşa Simkoyê Şikak, Şoreşa Agirî û Şoreşa Qazî Mihemed, nîşan û berjenga wê yekê ne ku Kurdên van deverane ne mêvan in, belkî xwediyê xaka xwe ne. Her weha di Kurdistanî bûna van deverane de jî min tu şik û guman nine, lê ez kesê jî di van herêmane de bi mêvan nizanim û Azeriyan jî bi mêvan nizanim.

**Başe bi raya te ew dijî Kurdbûna ku hûn qala wê dikin tenê ji aliyê hikûmetê ve meşiya ye yan xelkê Azerbaycanê jî tê de pişikdar in?**

“Em dibêjin ku hikûmeta Îranê ev karane kirine, ewa ku kiriye jî, di vêc û berjewendiya Azeriyan de nebûye, çunku zulm û zor ji Azeriyan jî hatiye kirin û Azerî jî weke Kurdan bindest in”

**Eva ku hûn xelkê wê deverê ne, başe we çi serpêhatiyeke xweş yan tal di bi hev re jiyana bi Azeriyan re heye?**

“Ger tu vê pirsyarê ji Azeriyekê jî bikî, renge bibêje ku ger me dijayetiyek jî hebe, eva karê dujminê me ye. Çunku Kurdan û Azeriyan hertim dijî desthilatê xebat kirine. Rast e ku Azerî di warê aborî, meseb û heta beşdarbûna di destlihat û dezgehên hikûmetî de herdem destçûyî bûne, lê ew jî wekî neteweya Kurd bindest in. Diyare dema ku şerê Kurdan tevî hikûmetê dest pê dike, guleya yekemîn Kurd û Azerî ber bi hev nîşan dikin. Ger em dûr neçin, piştî şoreşa 1357(1979)’an, ku xebata gelê Kurd bi rêberiya PDK Îranê û parityên din dest pê kir, heke em mêzeyî zirar û xisarên dujmin, bi taybet di herêmên Bakûrê Kurdistanê de bikin, yek ji sê ya wan Serbaz û Pasdaran ku dihatin kuştin, Azerî bûne.

Mixabin Kurdan nekariye ji Azeriyan re bidin selimandin ku şer û xebata me tevî

we nine, belkî tevî hikûmetê ye. Di vê derheqê de Azerî jî gunehbar in û renge guh bi gotinên Kurdan nedabin ku birayê min yê Azerî, tu jî wekî me bindestî û heqê te ye ku daxwaza mafên xwe bikî”

**Başe lêxistina nîşanê Kurdistanîbûnê ji wan dever û herêman nabe sedema aloziyê, çunku renge ev nîşan cihê pesenda Azeriyan jî nebe?**

“Eva ku Azerî dibêjin Azerbaycan e, Kurdan pê nexweş e. Kurd jî gava dibêjin vira Kurdistan e, ji Azeriyan re giran tê. Lê me li bername û programa PDK Îranê de bi zelalî nivîsandiye ku Kurdistan ji çar parêzgehên: Îlam, Kirmaşan, Kurdistan û Azerbaycana Rojava pêk hatiye. Me him weke PDK Îranê û him jî weke xelkê vê deverê ku bi sedan sal e bi hev re dijîn, ev hesasiyeta ku niha hin kes û aliyên Kurd û Azerî dixwazin pêk bînin, me nine. Ev karê wan çi zanayane û pisporane be yan jî nebe, bi vêc û qazanca dujmin xilas dibe û ji me re çi pêre çê nabe”.

**Wekî cenabê te qala wê kir niha him li nava Azeriyan û him jî di nava Kurdan de, du aliyên tund û dijî hev li ser Kurdistanîbûn yan Azerîbûna wan deverane li hemberî hev de rawestane. We jêve nine ku ev du alî û hêlene pevre jiyana ku te qala wê kir aloz û têk dide?**

“Min jêve nine ku Rasîszm, wateya netewexwaziya tund û hişk him di nava Azerî û him di nava Kurdan de bigihîje astekê ku rêberiya van du neteweyane bi dest bigire û van du netweyane berengarê hev bike û rastî şerê navxweyî bikin. Weke ew karê ku tundrewên nava hikûmetê sala 1358(1980)’ê di Nexedê de kirin.

Diyare ew bûyer û alozî desthilatê afirand û hikûmetê merema xwe ya taybetî jî hebû û dixwest bi hilkirin û geşandina şerê Kurd û Azeriyan him şoreşa Kurdan pê bihiloşîne û him jî desthilata xwe cihgîr û qahîm bike. Lê niha hizr û ramana Kurd û Azeriyan gelek zîrektir ji baskên tundrew ên hikûmetî ye, û dikarin rêyên aqilane ji bo bi hev re jiyanê peyda bikin”.

**Her wek hûn haydar in, nameya Nezmî Efşar kêşe û hawareke mezin di nava Kurdan de çêkir. We jê ve ye ku ev haware li cihê xwe de bû? Nêrîna te li ser nameyê çiye?**

“Min gelek hesasiyet bi nameya Nezmî Efşar nîşan neda. Çunku Navhatî jî dikaribe wekî ew kesane bihê hesibandin ku xwe di refa tundrewên Azerî de dibînin.

Ger wiha jî nebe, dixwaze bi hin liv û helwestan ku navê wî li tu cihekê de nine, bi van tiştane xwe bide nasandin. Her wiha ji bîr nekin ku ew malpera ku hevpeyvîna Nezmî Efşar tê de hatiye weşandin, li ser xerc û pereyê hikûmetê birêve diçe. Weşandina nameya navhatî jî bi merema afirandina dubendî û dijayetî li navbera Kurd û Azeriyan de bû û herwiha dixwaze xwe bide nasandin ku belê ez berevankar û parêzerê mafê Azeriyan im. Di nameya wî de heya qasekê jî bêedebî hebû û bêhurmetî û sivikatî bi rêberên Kurd dike. Lê ez vê yekê bi bêhurmetî nizanim, çunku mezinên Kurdan li mêj dem e gotine ku:**“Heke tu bixwazî kurê Kurdan nas bikî, mêzeyî zimanê dujminên Kurdan bike”**. Dema ku dujmin bi başî qala rêberek te kir, bizane ku wî rêberî xizmeteke baş bi neteweya xwe nekiriye. Ez tu car çavnihêriyê ji Nezmî Efşar û kesên weke wî nakim ku bi başî qala **Simko** bikin. Her wekî wê ku daxwaz ji min bihê kirin ku were pesna **Ata Turk** bike! Nezmî Efşar muhreyê hikûmetê ye û girîng jî nine ku li kur dijît. Renge dijber û Opozîsyon jî be. Di nava Opozîsyonê de jî şovînîzm heye. Ez dê vegerime ser gotineke te li civîna vê dawiyê ya ku te got: Nefsa Opozîsyon bûnê bi tevahî nahê wateya şoreşger û demokratbûnê. Lewre ez jî dibêjim ku hemû Opozîsyonek nikare qala biratî û ... bike”.

**Tu çawa mêzeyî bersiva birêz Mistefa Hicrî bo navhatî dikî?**

Diyare rêzdar Mistefa ew nameye wekî şexsê xwe(taybetî) nivîsandiye, ne wekî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê. Lê ez vê nameyê bi nameyek siyasî û berpirsyarane dizanim. Name bi hest bi berpirsiyariyê ve hatiye nivîsandin. Cehd û tekoşîn jî ji bo wê bû ku ew gotin û axavtina ku li navbera du neteweyan de derketibûne holê û renge destê dujmin jî tê de hebe, diviya bizav û kiryarek wiha bihatiba kirin ku vê toz û domanê binivîne û bi qazanca dujminên her du neteweyan xilas nebe. Lewma bi raya min kekê Mistefa Hicrî gelek berpirsyarane tevî vê meseleyê liviya. Yên ku rexneyan jî digirin ku çima gotiye Azerbaycan, merema wî navê Azerbaycanê ye ku bi fermî heye, him niha û him jî li serdemê Hikûmeta Şah de. Lewma nabe ku miroveke berpirsiyar li asta herî bilindi ya partiyê de rabe bibêje ku lêxin, bigirin û bikujin...”.

**Te di gelek gotinên xwe de qala wê kir ku hikûmet li pişt van pirs û kêşane de heye. Lê pirsyar eva ye ku heta li nerazîbûn û xwenîşandanên herî dawîn yên Azerbaycanê de jî derket ku Azerî yeketiya Azerbaycanê dixwazin. Te jêve nine ku ev yekîtiye dikare di pêşeroja Kurdistanê de asteng û pirsgirêkan biafirîne? Bi vê wateyê ku ger li gor daxwaza wan be, parek zaf ji Kurdistanê li ser Azerbaycanê bihê hesibandin?**

“ Ez serxwebûn û serbixwexwaziyê ji bo hemû neteweyekê bi rewa û berheq dizanim. Dema ku ez dibêjim Kurdan mafê serxwebûnê hene, min hinek îdeayên erzî (erdî) jî hene ku renge bigihîje aliyê Zencan û zaf cihên dinê.

Lê min qala wê kir ku Rasîzma neteweyî di astekê de nine ku bikare rêberiya van neteweyane bi dest ve bigire û bikarin li ser bihostek axê şer xweş bikin”.

**Yek ji wan mekanîzmên ku niha di cîhanê de ji bo yekalî kirina doz û pirsgirêkan tê pêşniyar kirin û kar jî pê tê kirin, Referandom yan hilbijartin û vegeriyan ji bo dengê xelkê ye. Başe te jêve nine ku heke rewş û etmosferek wiha ji bo referandomê pêk bihê û dengdan bo ser sindoqên dengdanê bibe bi xwestek giştî û hemû alî, Kurdistanîbûna van deveran ku pirsgirêka xwedîtiyê li ser heye, deng bîne?**

Netenê referandom, belkî belge û giroveyên dîrokî jî hewce ne. Rêya dawîn referandom e. Dema ku em dibêjin Refrandom, divêt li asta Parêzgehê de bihê kirin û her wiha divêt ji bo xelkê resen yên van deverane bihê kirin. Her çend ez hêvîxwazim ku ev meseleye negihîje refrandomê, diyare ger referandom jî bibe, Kurd dê ser bikevin”.

**Hûn rola partiyên Kurdî di van doz û pirsgirêkane de çawa dibînin?. Pir caran rexne ji partiyan tê girtin ku di selimandina Kurdsitanî bûna van deverane de bê şiyan û karîn bûne, yan dibêjin di vê derheqê de tu karek nekirine?**

“Bi raya min ev nasiyonalîzma tundrewane ku çê bûye, çi nekirî ye. Ger xebata bi dehan û sedan salî ya rêberên Kurd neba, Kurd niha her nemabûn. Niha bi hezaran Kurd di Kurdistana Îranê de bi navê Simko tên navkirin û cihwarên wan jî bi cihên dîrokî têne mêze kirin. Bi giştî ji aqil û mentiqê bi dûr e ku aliyê tundrew dibêje partî û şoreşên Kurdan çi nekirine, lê renge kêmkarî hatibe kirin.

**Başe tu Simko Çawan dibînî?**

“Ez ne herêmçîtî(nawçe gera) difikirim. Lê ez ji dayîkbûna nasîyonalîzma Kurdî di Simko de dibînim. Ez Simko bi çavkaniya nasyonalîzma Kurdî dizanim.”

**We jêve ye ku partiyên Kurdî domkerê wê nasiyonalîzma Simko bin ku tu qala wê dikî?**

“Belê min jêve ye ku PDK Îranê piştî Simko, yekemîn partî ye ku rola eslî û bingehîn a şoreşa azadîxwazî ya Kurdan di Îranê de bi dest girtiye. Lewre ye ku dujminên Kurd ewqas ku êrîşê dikin ser vê partiyê, li çi partiyek din nekirine. Fakt û girove ji bo gotinên min eva ye ku PDK Îranê di qada xebatê de maye û serê xwe netewandiye, radestî dujminên xwe nebûye. Lewma hesasiyet bi vê partiyê ji aliyê dijminan ve gelek zaftir e. mêzeyî dîroka pir ji serbilindî û şanazî ya vê partiyê bike.

# Demokrasî, Biha Û Piratîka Wê

**Beşa 28**

Kurmanc Hakkî
kurmanchakki@yahoo.com

**Saziyên ku alîkariya diyaloga giştî dikin**

Gelo çawa demokrasiya delîberatîv dê cî bi cî bibe? Ji ber ku demokrasî dixwaze ku biryarder û ekterên siyasî sozdar û girêdayî bi bingehên demokratîk bin, demokrasî tenê nikaribe li rêya saziyeke weke Parlemanê bihê cî bi cî kirin. Di civakê de hewce bi sazî û navendên din jî heye, ji bo ber bipêşbirina hêza berhevdana giştî.

"Elster" (1998) ji bo zêdekirina diyaloga giştî, ji bo dariştina destûra bingehîn, şêweyên jêrîn pêşniyar dike: (i) Endamên desteya civîna darêştina destûra bingehîn bi dengê welatiyan bihê hilbijartin ji bo ku nûneriya aliyên berfireh yên civakê di nivîsîna destûrê de beşdar be. (ii) Elîtên serbazî, siyasî û dewletî ji ber wê ku xwediyê berjewendiyên taybet in diviya li dariştina destûrê dûr bihên kirin. (iii) Beşek ji destûrê bi awayê vekirî û eşkere bihê dariştin û beşek jî bi awayê nihênî. Eşkere dariştin û beşdariya giştî dibe hegera wê yekê ku aliyê dadperweriyê bihê berçav girtin. (iv) Pesendkirina destûrê bi merca referandom û dengê welatiyan be, ji bo ku yasa bibe cihê pesend kirina giştî.

Hilbijartina endamên civaka ku destûra welat dadirêje û herwisa ji holê der xistina wan kesên ku destûr rasterast kar dike ser jiyana wana (xalên i û ii), dikaribe alîkariya pêşveçûna yeksaniyê û toleransê bike. Hevdan û întegrekirina vekirîtî û karê bi nihênî û wacibkirina dengdana bi destûrê (xalên iii û iv) dibe hegera wê yekê ku biryarder hegerên hilbijartina siyaset û ramanên xwe yên pêwendîdar bi destûrê ji bo welatiyan bi awayekî berfireh şirove bikin û welatiyan rêya beşdarî li dîbata pêwendîdar bi destûrê hebe û eger bi dilê wana nebû, pêşniyara destûrê qebûl nekin. Pêşniyara "Elster" ji bo destûrê û şêwaza organîzekirina wê dikaribe bo pirsên din yên demokrasiyê jî bi kar bihê.

Gelo rola welatiyan di demokrasiya li ser bingeha nûnerayetiyê de çiye? Rola welatiyan di demokrasiya delîberatîv da, ji aliyekê beşdarîkirin li şîrove û nirxandina biryaran piştî wana ye û ji aliyeke din jî beşdariya çalakane li rojevên siyasî yên berî biryardanê. Vekirîtî û Parlemantarîzm mercên wê yekê ne ku welatî dikaribin bi awayekî berfireh beşdariye di çalakiyên siyasî de bikin. Rola welatiyan di demorasiya delîberatîv de bi du (2) awayan tê dîtin. Beşdariya wan di çalakî û diyaloga siyasî ya berî hilbijartinan de û her wisa beşdariya wan di dîbatên paş biryardanên giştî de tê dîtin. Merca demokrasiya li ser bingeha nûnerayetiyê, eşkereyî û vekirîtiya pêvajoyên ber bas li dema biryardanê û îmkana beşdariya welatiyan li diyalogên pêwendîdar bi pirsên ku tên biryardanê ye.

Pirsyara herî zehmet eva ye ku gelo çawa di demokrasiyê de dê beşdariya çeleng ya xelkê li ser û bendên hilbijartinan yan biryardanan zêde bibe? Di civaka modern da şansê welatiyan li rêzkirina basên cihê biryarê gelek sinûrdar e. Pispor, birokrat, partî û karbidestên dewletî û medya di rastî de pirsên ku diviya bên ber basê, ji bo ku biryardanê diyarî dikin û dîtin û hizrên welatiyan piranî li ser wan pirsa ne yên ku bi hazirî digehin ber destê wan.

Li gor "Barber" (1984) di demokrasiyê de diviya meydana beşdariya welatiyan bi armanca zêdekirina hêza şirove û têgehiştina wan li berjewendiyên giştî berfirehtir bihê kirin. Li gor wî di damezrandin û diyarîkirina saziyên biryarder de, diviya giraniyek zêde bi biryarên bi şirove û li ser bingeha têgehiştina berfireh bihê dan. Li gor wî ji bo zêdekirina hêza şirove û ramanên welatiyan di pirsên siyasî de sazkirina dengdanên giştî (referandom) yên wan pêwîst in ku xalên ku diviya biryar li ser wan bihê dan, zêdeyî du altirnatîvan bin. Ji bilî wê yekê "Barber" pêşniyar dike ku ji bo pesendkirina yasayan dudu gerên dengdanê hebin hetanî her carê welatî bikaribin bi awayekî berfirehtir di pesendkirina yasayan de beşdar bin. Du gerbûna dengdanan xwe bi xwe nabe hegera wê yekê ku hêza hizr û analîza welatiyan zêde bibe û welatî bi awayekî aktîvtir beşdarî dîbatên siyasî bin.

Beşdariya çalakane û pêşvebirina têgehiştina giştî li astengên herî mezin yên demokrasiya delîberatîv in. Siyasetzanan hin navend û sazî ji bo pêşvebirina hizra beşdariya çalakane û bilindkirina asta têgehiştina giştî peyda kirine. Yek ji van hizra "Dahl" ya "*minipopulus*" wate netewa biçûk e ku di beşên berê de bi kurtî li ser vê mijarê hatiya bas kirin.

Li gor "Dahl" "minipopulus" dikaribe di her astekê de: astê gund, bajar, û seranserî û navnetewî de jî bê sazkirin. Li gor wî bo nimûne ji bo pêkhatina "minipolulus"ekê dikaribe hezar (1000) welatî bi awayê şansî bên diyarî kirin. Mînîpolulus di midehê salekê de li ser pirsgirêkek taybetî civînan saz bike, ser de biaxive û derbarê wê de bibe xwediyê hizra xwe. Ji bo pêşveçûna



mînîpopulus, bikaranîna teknolojiya nû weke kompyuter, înternet û dezgehên din ên ragihandinê dikaribe bihên bikar anîn. Di rewşa gelê Kurd de û di nebûna imkana civaka sivîl û azad de bûna "minipolulusan" li rastî de dibe hegera wê yekê li ser pirsgirêkên bayedar û giring yên netewî welatiyên derve û hundirê Kurdistanê bi awayekî berfireh beşdarî li pêvajoyên siyasî û bikaranîna wan li peşveçûna doza netewî de bikin. Li gor "Dahl" yek ji karên mînipopulusekê bo nimûne diyarîkirina ew pirsgirêk û pêvajoya ne ku mînîpopulusên din diviya li ser wan biaxivin û bigehin encamê.

Ji bo beşdariya hizr û ramanên mînîpopulusan di biryardanê de, "Dahl" pêşniyar dike ew pêşniyarên mînîpopulusan bi awayekî micid wek ideala demokrasiyê li beşdariya çalakane ya welatiyan bihê wergirtin û qîmet bi wan pêşniyaran bihê dan ku ji bo biryardanê pêşkeşî biryarderan tên kirin. Bi vî awayî pêşniyarên mînîpopulusan yasayî tên hesab kirin.

"James S. Fishkin" (1991) ji bo pêşveçûna demokrasiya delîberatîv şêwaza nirxandina hizra welatiyan pêşniyar kiriye. Li gor wî ji bo pêşveçûna demokrasiyê û bilindbûna asta beşdarî û hizra giştî hewce ye aliyên siyasî yan welatî li ser pirsgirêkan bi awayekî vekirî li hemberî hev rûnên. Her çend bi hizra "Fishkin" ji bo pêşveçûna asta têgihîştina giştî pêwîst bi bikaranîna teknolojiya nû nake, lê ew jî mîna "Dahl" li ser vê baweriyê ye ku divêt beşdarên dîbata gotûbêja rû bi rû û bi awayekî şansî bihên hilbijartin. Bi vî awayî şansê wê yekê ku welatî û dîtinên cur bi cur yên wan bi awayekî wekhev beşdarî diyaloga pêwendîdar bi pêşveçûna demokrasiyê bikin, wek hev e.

Bi baweriya "Fishkin" beriya beşdarî di diyaloga rû bi rû de, welatî bi awayê nepenî dê bersiva pirsyarên pêwendîdar li rêya ***rapirsiya delîberatîv***[1] dê bidin. Bi raya wî lêkolîn nîşan didin ku hizra beşdarên di rapirsiyê de li gor dem û her wisa zafbûn yan kêmbûna zanyariyê

tê guhartin. Lewma bi berhevdana dîtina welatiyan berî basê û her wisa piştî diyaloga pêwendîdar, mirov dikaribe asta kardanewa diyalogê li ser welatiyan bibîne.

Merca beşdariya rapirsiya delîberatîvê du xal in: 1) beşdarên berhevdanê nûneriya hemû çîn û beşên civakê di xwe de bigirin û 2) di diyalog û basên pêwendîdar da merca beşdariya nûnerên dîtin û ramanên hemû welatiyan û civakê bi awayekî wekhev û bi parastina otonomiya takekes li derbirîna hizr û ramanên xwe bihê parastin. Berhevdana delîberatîv ya ramanan di rastî da wek ceribandinekê ye ji bo dîtina wê yekê ku çawa têgihîştin û ramanên giştî yên civakî pêk tên.

Di welatên demokratîk da ji bo pirsgirêkên cur bi cur gelek caran rapirsiya giştî hatiye saz dan. Bo nimûne qalkirin bi hindekan dikaribe alîkariya vê basê bike: Rapirsiya giştî li ser piştgirî û alîkariya Amerîka bo welatên feqîr di sala 1996'an. Li welatê Çêk, sala 1996'an rapirsî ji xelkê hate kirin ji bo helbijartina altirnatîvên cur bi cur yên vejenê (enerjî). Li Birîtaniya di salên derbazbûyî de rapirsîna delîberatîv li ser pirsgirêkên pêwendîdar bi tawanbarî[1], hevgirtina Ewropa, pêşeroja sîstema Paşahiyê li wî welatî hatiye encam dan. Her wisa li Australiyayê sala 1999'an, rapirsînek delîberatîv pêk hat ji bo biryardan li ser serxwebûna tewaw û damezrandina Komara Australiya yan jî man wek beşek li Padîşahiya Birîtaniyaya mezin. Di sala 2000'an de jî li welatê Danîmarkê rapirsiya delîberatîv li ser endametiya Danîmarkê li diravê hevbeş yê Ewropa wate "Euro" de. Di wê rapirsînê de 364 welatiyan beşdarî kiribû.

Rapirsiya delîberatîv her wisa li rêya ragihandinan û radyo û televîzyonan hatiye zêrevanî kirin. Weşana encama rapirsiya delîberatîv li radyo û televîzyonan de dibe hegerê vekirîtî û eşkerebêjiya civakî û bi vî awayî welatî dê ji rêya ragihandinan de agahdarê encama rapirsiyê bibin. Hetanî wê gavê rola rapirsiyê piranî wek berhevdana raya giştî û pêşdîtina hegera şêwaza dengdana xelkê li hilbijartinan hatiye dîtin. Bi vî awayî rapirsiya delîberatîv wek piştevan û alîkareke demokrasiya li ser bingeha hilbijartin û nûnerayetiyê hatiye dîtin.

Armanca destpêkî ya beşdariya delîberatîv li pirsgirêkên pêwendîdar bi demokrasiyê û çarenivîsa welatiyan bûn bi cihê hitbar û bawerîbûna sîstema rêberiya civakê ye. Ji bo ku demokrasî bikaribe bi awayekî piraktîk bikeve nava welatiyan, hewce bi gelek sazî û enistîtûyên demokratîk weke civak û encûmenên herêmî, saziyên medenî û hwd heye. Armanca sîstemên demokratîk diviya wekheviya siyasî û civakî ya welatiyan be û ji berçavgirtina hewcehiya siyasî, civakî û aborî ya welatiyan be.

Di beşên tê de em dê encama dawî ya gotara xwe û kurtiya basên hatî kirî, şîrove bikin.

# Kirîn Û Firotina Keçên Îranî li Keraçiya Pakistanê

Li gor nûçevaniya Îlna, rojane 45 keçên Îranî li bazara Keraçiyê tên kirîn û firotin ku cihê şikê nine ku ev keçane ji bo mifah wergirtina nebaş ya zayendî di rêya bandên desthilata rejîma Komara Îslamî tên kirîn û firotin.

Hêjayî gotinê ye ku hejmara keçên hilatî di Îranê digihîje 300 hezar kesan û nêzîk bi



86 ji sedê ya keçên ku cara yekem ji malê direvin, rastî tecawiza zayendî dibin. Herwiha hejmara ciwanên tûşbûyî bi pirsgirêkên rûhî û meraqê li Îranê, digihîje 8 heta 10 milyon kesan ku piraniya wan keç in.

**Jêder: Malpera "roshangari"**



# Girtin Û Azara Cendekî Ya Zarokek Kurd

Zarokek Kurd bi navê **Rehîm Salihî** xelkê bajarê Seqizê bi guneha belavkirina teraktên partiyekî Kurdî ji aliyê hêzên Sipaha Pasdaran ya gundê Mîrdê hate girtin û di Navenda Leşkerî de tevî lêdan û êşandina cendekî berengar bû.

**Çavkanî: RMMK.org**

# Xwekuştina Serbazakî Kurd

Serbazekî Kurd bi navê **Hadî Weysî** xelkê bajarê Seqizê ku ji bo zîndana Kamyaranê bi neçarî hatibû dûrxistin, bi lêxistina guleyekê bi serê xwe dawî bi jiyana xwe anî.

Navhatî bi sedema dubendî tevî berppirsê xwe du roj berî xwekuştinê, ji bo zîndana Kamyaranê hatibû dûrxistin.

Tê gotin ku ev serbaze tûşî meraqa ruhî bûbû.

**Çavkanî: RMMK.org**

# Rejîm Dîsan Li Bajarên Kurd Û Azerî Akincî De Arîşe Diafirîne

Li gor agehiyên gihîştî bi "Kurdistanmedia" ê çend rojan berî niha li nava bajarên Kurd û Azerî akincî de, daxuyaniyek hatibû belavkirin ku tê de gefa şewitandina van dikanan hatibû kirin ku xwediyê wan kurd in û li ser derê dikanên xwe bi Kurdî nivîsandine. Her wiha di daxuyaniya han de hatiye ku heke di demeke kurt de nivîsên kurdî yên ser dikanên han nehên rakirin û bi zimanê Farsî yan jî Azerî nehên nivîsandin, ev dikan dê bihên şewitandin.

Bê guman eva jî pîlaneke nû ya kirêgirtiyên rejîma Komara Îslamî ye ji bo afirandina dubendî û arîşê di navbera Kurd û Azeriyan de.

Em tevî mehkûmkirina kiryara han û her cure kiryarekê ku arîşê li bajarên Kurd û Azerî akincî de pêk tîne, ji xelkê bajarên han daxwaz dikin ku bi tu awayekê guhdarî tu pîlanên şeytanî yên rejîmê ne bin û li pey ne çin.

# Li Bajarê Sewlava Keçekê Agir Berda Xwe

Roja 10.06.2006'an, li gundê "Hevmine" ya ser bi bajarê Sewlava, keçeke 22 salî bi navê "**Kwêstan**"ê agir berda xwe û jiyana xwe ji dest da. Hetanî niha sedema vê xwekuştinê ron neûye.

# Serdemê Dayîk Serdestiyê

**Amadekar: Hemîd Muxtarî**

J Xweza û rewşa coxrafî ji sebebên bingehîn yên pêkhatina çand, terzê jiyanê û çawaniya berhemanîna madî û menewî ya civaka mirovî bûye. Ev yeka li dewranên berê de, dewranek ku senet û pêşkevtin diyar nebû, berçavtir bû, xweza û coxrafî, sinûr û raber, nizmî û bilindî, av û hewa, taybetmendiyên deverên coxrafî û wd ... her yek ji wan bi awayekê bandora xwe li ser kemilandina jiyana civakî û çandî ya xelkê daniye.

Peydabûna mirovan li ser erdê tevî pêkhatina malbatê hevçax bûye û bêşik berevanî kirin ji jiyana mirovan li hember heywanên hov û bûyerên sirûştî, bûye sebebê pêkanîna jiyana bi tebahî ji bo mirovan. Her ji destpêka bi hev re jiyanê de, pêrewî kirin ji yasa û qanûnê weke erkekê ji bo hemûyan hate diyarî kirin, ku hêdî hêdî aliyê exlaqî bi xwe ve girt. Ev serûberiya him di jiyana malbatî de û him jî di jiyana eşîretî de ku yekemîn xelkê piştî malbatê ne, ser girt û her çend sîstemên civakî pêşketin û bûne sebebê pêkhatina hikûmet û împeratoriyan, lê çi demekê malbat weke bingeha mezin ya civakê ji nav neçû?

Di vê demê de dayîkê di malbatê de roleke girîng hebû û çimku berpirsyariya xizmetkirina bi endamên malbatê û elimandina zarokan li stûyê wê bû, tu dibêjî ku serûberiya malbatê û hebûna wê li ser afirandin û heza dayîkê hatibû avakirin û bab roleke wisa tu nebû. Bi gotina "Wil Durant" seba wan şiyanên dayîkê (jin), erkê bab (mêr) di astekê herî nizim û kêm de bû.

Kar û xebata jinê li ser erdê, têkiliyeke qahîm û xurt di navbera wê û axê de pêk dianî û her eva bû sebebê vê çendê ku jin di cotkariyê de pisporî û şarezayiyê bi dest ve bîne û hinek tiştan biafirîne. Yanî li ciyê komkirina hibûbatan, bi xwe dest bi veşandina tow û çandinê dikir, û mêran jî di vê demê de cehd dikirin da ku alav û amûrên cotkariyê



(dasikên ku bi keviran dihatin çêkirin, mereyên xwar û wd ...) çê bikin û erdê ji bo mifah wergirtina pitir amade bikin. Divêt were gotin ku yek ji sebebên têkelîbûna jinan bi malbatê û kar û barên cotkariyê, rewşa berevaniya civakê bû. Bi vî awayî ku erkê berevanî û şer kirinê, mêran li stû girtibû û piraniya deman mijûlê şerên cur bi cur tevî dijmin û neyarên desteya xwe bûn û derfeta hewce ji bo karkirinê di nava malê û zeviyê bi destve nedianîn. Jin ku sebebê afirandina sîstema cotkariyê bû, hêdî hêdî karîn heywanan jî kedî bikin û ji xêncî mifah wergirtina xwarinê ji wan weke hêza karî jî mifah wergirin û ev yeka guherîneke mezin di jiyanê de tê hesibandin. "Wil Durant" bi sererastî dibêje ku di civakên destpêkî yên mirovahiyê de piraniya pêşketinên aborî bi destê jinan ve hatiye kirin ne bi destê mêran ve. Ev dibêje her ev jina destpêkî yekem werîs û piştre perçe afirand û her wiha eva jin bû ku bo sebebê pêşketina pisporiya seneta dirûn û raçandinê, kuloz çêkirinê, zenbîl çêkirinê û malçêkirinê û her wisa eva ew bûn ku piraniya caran mijûlê karê ticaretê bûn.

Ev her wiha dibêje ku civata malbatê jî jinê pêk aniye û hêdî hêdî navê mêr jî aniye di nava lîsteya heywanên kedî kirî de û ew hînê edeb û hurmetê û hunera rabûn û rûniştinê û rêzgirtina civakî kirine.

Bi van serkevtinên ku jinê di warê aborî, malbatî û perwerdehiyê, civakî û siyasî de bi dest ve anîn, dewranek di jiyana mirovahiyê de dest pê kir ku bi navê serdemê jin serdestiyê (dayîkşahî) bi nav û deng e.

Ev serdema piştî dewranekê ye ku jin û mêr bi vê yekê ku cehdekê di warê berhemanînê bikin, wekhev ji destkevtên xwezayî xwedî derketine û destpêka vê li demekê de bûye ku mirov bi karê cotkariyê û mifah wergirtina pitir ji erdê nasyar bibe. Bi gotina "Gurdun Caylîd": "Di navbera netewên cotkar de jin sebebê xizmayetiyê ye. Di jiyana giştî de, karên girîng bi destê jinan ve tên encam dan, bi vê hicetê rola eslî li stû yê wê ye, pirsa desthilatê û serve bûna jinê jî her li vir çavkanî digire".

Di vê dewranê de yekîniya malbatê ser bi tayifeya jinê bû, mêr dihate nava malbata jinê de û li dema bê şiyanî û hebûna kêmasiyên din de jinê dikarî wî red bike. Mêr xwe girêdayî bi eşîra dayîka xwe dihêla. Bi rêvebirina kar û barên malê û birêxistina karên berhemanînê li stûyê jinan bûn, xincî vê çendê, xwezayê jî çêkirina zarokan xistibû stûyê jinan. Eva ku ji bo mêr dima, tenê berevanîkirin ji giştî yanî **malbat û eşîrê** li hember erkê jinan bi vî awayî ku hewce bû, nediyar bû.

Ev nivîsara, kurtiyek ji basa Dayîk Serdestiyê û sebebên wê bû, di hejmara tê de em dê ji civaka dayîk serdestiyê vegerin bo ser civaka bav serdestiyê û sebebên vê dê bidin şirove û dahûrandin.

# Jineke Nexedeyî Bi Kevirbarankirinê Hat Mehkûmkirin

Jineke Kurd bi navê **Melek Qurbanî** ku bi guneha zînayê hatiye girtin û niha jî di girtîgeha Urmiyê de ye, li gor hukmê dadgeha Îslamî ya Urmiyê bi kevirbarankirinê hate mehkûm kirin. Ji aliyeke din mêr û birayê vê jinê bi navên **Mihemed Danişfer** û **Ebûbekir Qurbanî** ku mêrê gumanbar bi zinayê kuştine, her yek bi 6 sal zîndanê hatine mahkûm kirin.

**Çavkanî: RMMK.org**



# Ji Olên Mirovatiyê

## Ola Konfûşiyos



**CANKURD**

---

Li ba Çîniyan **Konfûşiyos** bi "**Şah**" tê navkirin. Ew sala 551'ê berî zayîna hezretê **Îsa** ji dayîk bûye û sala 479'ê ji dinyayê koç kiriye.

Di vê olê de ne Qeşe, ne rabîn, ne pîr û ne mele hene. Kenîse, camî an perestgeh nînin. Dogmayek baweriyê jî tune ye. Ne dîroka afirandinê, ne behişt û ne jî dûjeh, tev Xwedê jî di nav baweriya Konfûşiyosan de tune ye, tenê pênc armancên zevînî û mirovî hene:

- **Maldarî**
- **Rûmet**
- **Gelek Kur**
- **Jînek dirêj û xweş**
- **Mirinek baş.**

Xala giringtir di nasdariyên **Konfûşiyos** de siniç e "*Exlaq*" e. Divê ew kesê, ku vê hildigire di jîna xwe ya malbatî û ya civakî de bi xelkê re hevsaz û dirist be.

Şah "**Konfûşiyos**" dibêje, ku hêza mezintirîn a ezmên û zevînê di pêdakirinê de ye. Her tişt li ser wê avabûye û ava dike. Zevîn tovê dide, ro û baranê jî şiyanê didin.

Ev bingeha hişmendî û jînparistina konfûşiyosî ye. Mirov di pirtûkên **Konfûşiyos** de berhemê hevsaziya ezmên û zevînê ye, li ba wî ne Xwedê, ne jî can û rewan derveyî hişmendiya mirovî hene, lê belê binesaziyek cîhanî heye, wekî di ezmanan de saziyek bingehîn heye, sirûşt jî li saz e. Hema ew nabêje ev hevsazî ji kuve hatiye, çawa pêda bûye. Li ba wî civat û jîna kesanî jî pêdivê bingeh û zagonê ne.

Di jîna **Konfûşiyos** de hovîtiyek bê wekanî li **Çînê** hebû, kuştinekê kuştinek dihanî û tolhildanekê tolhildanek dihanî. Di navbera du şahdariyan (**Lu û Tsîn)** de neyartiyek mezin û dirêj hebû. Şah **Lu** ji hişmendiya **Konfûşiyos** hezkir û ew kir şêwirdarê xwe, û bi taybet dema wî gotinin wek van gotinên hêja dikirin.

**[Deban "*sîlah*" bi xwe re nebaşiyê tînin, evana ne acetên rûmetdaran in, tenê gava çareyek dî namîne, mirov dikare wan bi kar bîne.]**

**[Jiyan qencî ye.]**

**[Ewê bi hiş dikare serweriyê bike, pêdiviya wî bi çek û debanan tune ye.]**

Dawî gava herdu şah (**Lu û Tsîn**) li hev hatine, û ji şah **Lu** re hinde jinên bi evîndariyê navdar bûn û 120 hespên kumêt wek diyarî ji şah **Tsîn** de hatine, şah **Lu** bi wan gêro û sermest bû, şalyar û fîlosofê xwe **Konfûşiyos** ji bîr kir. Wî jî seriyê xwe rakir û ji ba wî koç kir.

Di geriyanê de gelek şagird, ji wan (72) peyrewên bijarte ramanên wî li welêt belav kirin, û **Konfûşiyos** bi "**Keyserê fêrkirinê"** hat naskirin. Bi rêya **Mêngst** ê xort û wefadar bîr û baweriyên wî hatin hilgirtin û Konfûşiyosî di dewletê de hat çandin û nema tê sîlkirin.

Tevî ku 50 salî berî ji dayikbûna hezretêî **Isa** – *Silav lê bin* – ola **Buda** derket holê, û wek wê jî **Lawtsî** û **Tawîsî** di **Çînê** de xort û bi hêz bûn, lê belê Konfûşiyosî hîn jî, ta niha, çax û damarên xwe berdane nav gelêd **Çînê** û li hember dîktatoriya Komonîstiyê berxwe dide.

**[Weku di ezmên de royek heye, di malbatê de mêrek heye, wilo di welêt de jî divê keyserek hebe. Ev histobariya xwe ya asîmanî digire, û lewre bi "*Kurê ezmên*" tê navkirin.]**

**Mêngst**, ku yekemîn şagirdê **Konfûşiyos** bû (371 b.Z.) bîr û baweriyên seydayê xwe şirove kirin û asantir belav kirin. Ew dibêje:

**[Du zorbazên dema berê hebûn, Kîh û Çaw. Hem deselatdariya xwe û hem jî gelên xwe winda kirin. Wan gel winda kirin gava dilê gel ji dest xwe dan. Rêyek heye, ku tu deselatdariyê û gel bo xwe vegerînî, ew jî rêya dil e.]**

# Ji kû heya kû



**Bêrî Bihar**

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye

Bûye lûsa rawil û sewalan,
Ji fêkîyên nêrît û janên me,
Ji hêvî û ramanên me doşekên sitûr girêdane
Li ser wan mar û dûvpişkan pal dane,
Dûyê qelûnên wan bûne ewrên reşgiran li ser baxên me.
Li benda barîna herî bi xişm me teyroka wan î xezeban.

Ka binihêre !
Ev rê...
Ev rê rêya me ye

Ji peşkên barana şerê azadîxwaziya me,
Pêlên dijwar yên neyartiyê dizên,
Ji ava zelal vedixwin dostên me!!!
Ew xwarinxurên demekî sifra me ya dewlemendiyê
Şaredariya xwe avakirine li ser qûlpikên têrxwarinê.

Ka binihêre !
Tu nas dikî?
Ev rê rêya me bû

Rêya min û te,
Bûye korç û newal,
Di yek ji wan korçan de veşartî me ez,
Bûne delavokên hûrik di korçan de hestên me,
Weke sêwîstêrkan li hev civîyane.
Dilerizin...
Çawa be jî, ev rê rêya me bû,
Xirab be jî ezê wê biparêzim
bi xwezaya xwe ya jinantiyê.
Çawa be jî ked û xwêdana me rijîyayê.
Bixwazî dîsa were, hewl bide û bimeşe,
Ezê nas bikim pêlkirina te,
Nas bikim ezê,
rêçên te yên nermik
li ser çavên xwe...

# BIYANÎBÛN

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Biyanîbûn, veguherandina derûn û kakilê jiyana mirov a xweser û taybet ku bêhemd li bêahengî, bêwateyî û jixwebidûrketineke bêyom dadigere ye. Bi vegotineke din biyanîbûn, mirov ji kirdeya jiyanê derdixe û wî/wê wekî biresereke bênirx û tişteyî dide bikaranîn û xebitandin.

Kengî ku ber û berhemên ku mirov bi destê xwe diafirîne hin bi hin ji reseniya xwe bi dûr dikevin û ku bedewî û gewzîneriya wan ber û berheman li dijminahî û têkbirina mirovan dadigerin, wê çaxê biyanîbûna mirov û civakê jî dest pê dike. Û wê gavê mirov û civak dibin dîl û bindestên ber û berhemên ku wan bi destê xwe afirandine. Biyanîbûn, bi awayekî jî bi alozî û tevlîheviya pêwendiyên civakî re rû dide. Belê ev geremol û aloziyên civakî ne îro; hê di destpêka xwedîtiyê(mulkiyetê) derketine holê. Xwedîtî, her çend ku çendanî û çawaniya hilberiyê zêde dike jî, xwedîtiya arizî ya ku gihîştiye merhaleya îro, xwezayê û hemû heyberên wê roj bi roj dihelikîne

Biyanîbûn, di derûniya mirov de, di encama lêkdana hewldanên ku bi mebesta jiyaneke serbilind û rûmetdar dest pê dike û liv û bizavên ku mirov gav bi gav arasteyî bêrûmetî serberjeriyê dike de pêk tê û teşe digire. Her çend ku rûxînerî, wêrankerî û biyanîbûna mirov a civakî di hemû warên jiyanê de pêkan be jî, dîsa cerbirandin û ewêzî (xelef) û vegerandina wê tiştekî gengaz e. Belê çilvirîn, kavilkirin û dejenerekirina wêjeyê tu car bi hêsayî nayê cebirandin. Û ne pêkan e jî. Ango, bêeslkirina civak an jî neteweyekê, pêşî bi bişavtin û biyanîbûna wêjeyê dest pê dike. Bi kurtayî jehra biyanîbûn û bêesilbûna civakê, di serî de xwe di wêjeyê de dide der. Peyre jî hin bi hin li hemû rehên çanda gel û civakê belav dibe û wê dîl radest digire. Ji do heta îro- di dîroka wêjeya gelan de- lixwexwedîbûn û jixwebidûrketina mirov û civakê, wekî du dijminên pozber û lêkneker misêwa bi hev û din re şer dikin û dikevin cirê. Her du dijberên qedîm û kevnar her dem li dij hev belê pevre dijîn. Bi heman awayî jî her gav bi hev û din re dikevin nava rikbariyeke giran. Bi vê lêkdanên dijwar re yek li ya din dadigere. Şerê navbera herduyan dişibe şer û pevçûnên navbera mirovên bilebat û afirîner ên ku puxteya jiyanê bidest dixin û kesên têkçûyî yên ku di nava hevkêşî û aloziyan de winda dibin.



Ev şer û lêkdanên bênavber car caran li serkeftinên bêhempa û car caran jî li têkçûnên bêkêr û bêxêr dadigerin. Bi awayekî din, yek yekê winda dike an jî yek yeka din dişibîne xwe.

Mirovahî, digel ku tiştên pir payebilind û qîmetdar diafirîne bi heman awayî gelek tiştên kerax û bêteşe jî dixuliqîne. Ji aliyekî ve di hêla zanist û teknolojiyê de pêşve diçe; şoreş û veguherînên pêemsal bidest dixe û ji aliyê din ve jî nirx û hêjahiyên dîrokî bi destê xwe ji holê radike. Zimanê ku bi hezaran sal hatiye axaftin, çand û hunera ku dexmeya xwe li dîrokê daye, wêjeya ku bûye ronîdariyên dîrokî û hwd. hemû bi teknolojiya nûjen re hêdî hêdî ji qada jiyanê vedikişin û hin bi hin winda dibin.

Mixabin îro ro mirovahî xwe dispêrê civakeke yekpar, bêruh, bêgiyan, bêhest û bêraman. Bi vê yekê re dahatûya cîhanê û tevê mirovahiyê dikeve xetereyeke mezin û çarenîn. Lewre mirovahiya ku ji wêje, huner û estetîzma giyanî bidûr bikeve, dê tu car nikaribe xwe ji belawat û karesatên vê dinê reha û rizgar bike. Bi vegotineke din; biyanîbûn li şûna ku mirov her gav bi kesên din re di nav kar û xebatên hevpar û sûdewar de be, hêjahiyên payedar biafirîne; ji aliyekî ve ji reseniya xwe bidûr dikeve ji aliyê din ve jî dikeve nava liv û bizavên pelos û di tevgerên kerih û bêyom de digere. Hêçku wêje, bi hemû lihemberderketina liv û bizavên bêsinc û tevgerên derexlaqî ye.

Biyanîbûn, pêşî bi wêjeyê dest pê dike. Belê pesarî û hovîtiya mirov bi saya şardekirin û perwerdehiyê û her wiha hestên wêjeyî ji holê radibe. Her wiha kemilîn, peresîn û şarezahîbûna mirov a derûnî û ramanî jî dîsa bi saya wêjeyê bi dest dikeve. Wêje, perwerdekirina peyvê, sererastkirina axaftinê, gewzandina hestê, stewandina ramanê û ya gîrîngtirîn jî bedewkirina liv û bizavên mirov e.

---

Kaniya Helbestan

**Letîf Epozdemir**

## EVÎINÊ KUŞTÎN

Dayê baran e
bêhna mirinê tê,
ewr bûne mij û moran,
pêşna qederê tê
Qompare rijiyan
bi hezaran însan
bê nefes û can
li erdê dirêj man.

Jehrî dibare
bi bêhna sêvan
reş e asîman
zarok li erdê bê derman.
Gul venabin
piranî zarok in
jehrî rijya ser singê wan
mirin e êdî para wan.

Mîrata mirinê
vê carê
bê xeber hat
bi ser me ve girt
bê rehm û eman.
Bayê sibê hê sekinî
Li hawîr bêhna sêvan
sêv ne ew sêvên xwarin ê
lê dermanê mirin ê.

Can westiya
jiyan rawestiya
ax dikele bi xwînê
dawî hat li evînê.
Keçeke çavgeş
di ricife bi girîn
dibêjê hewar e dayê
ez mir im bi vê bayê

Min bixe nava nivîn
ku bikeyê êşa min
qeda bi vê qeder ê
çi karê me li dinê
Li ber singê kalekî
kûrekî dû sê mehî
di cemide canê wî
lê tuneye çara wî. Mirin hat
mala kir vala
hemû kes bê mecal in
hey dinyaya derewîn
tu binêr ev çî hal e.
Hat karwanê mirinê
di bare jehrî li jor
neyar hate xezebê
dîsa bu har û çavsor

**Çeprast:**
1. Gişt di Farsî de.
2. Berevajiya navê rûbarekê ye di Ewropayê de – Berevajiya navê vê demançeyê ye ku di terora Mîkonosê de hate bikaranîn.
3. Berevajiya navê bajarekî Îranê ye – Welatekî Afrîqayî ye.
4. Jineke şoreşvan bû.
5. Dayîk di Turkî de – Heke ev peyva bê ducarkirin di Erebî de navê balindeyekê ye.
7. Çiya di Soranî de – Navê darekê ye – Ew jî mirov difetisîne.
8. Serkomarê Turkiyê bû ku hez hez dikir pirsa Kurd çareser bike – Ew jina Kurd ku serokwezîra Pakistanê bû.
9. Wusa – Berevajî dibêjne mirovên çûr.
10. Muzîkên şoreşgerî.

**Serjêr:**
1. Şibhigiraveke mezin e di Ewropayê de – Heywanên çoleme.
2. Navê jina Kirîs Kuçîra – Di Farsî de tê wateya **serê**.
3. Di duayan de ev peyva zaf tê bikaranîn – Bajarekî Kurdistanê ye.
4. Hekî **K** bihê zêdekirin, navê herêmekê ye di Îspaniyayê de ku daxwaza federalîzma asîmtirîk dike – Li jêr ava rûbaran de heye.
7. Navê fîlmeke Farsî ye – Serkomarê Amerîkayê bû.
8. Hunermendeke Fars e ku di opêrayê de kar dike – Heke **Î** bihê zêdekirin, di bihiştê de heye.
9. Navê mêra ye – Hekî **T** bihê zêdekirin, navê Serkomarê Yugislaviyê bû.
10. Di Farsî de tê wateya nexweş – Ew jina ku çalakvana siyasî ye û eva 16 sal e ku di hepsê de ye(bi xwe jî xelkê Birmê ye).

# Xaçepirs

Amadekar: Şehab Xalidî

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | ■ | ■ | | | | | ■ | ■ | |
| 2 | | | (4) | | ■ | ■ | | | | |
| 3 | | | | | ■ | ■ | | | | |
| 4 | | | | | | | | | (2) | |
| 5 | ■ | | (3) | | ■ | ■ | | | | ■ |
| 6 | ■ | ■ | ■ | | ■ | ■ | | ■ | ■ | ■ |
| 7 | | | | ■ | | | ■ | | | |
| 8 | | | | | ■ | ■ | | | | |
| 9 | | | | | ■ | ■ | | | | (1) |
| 10 | | ■ | ■ | | | (5) | | ■ | ■ | |

Peyva veşartî: ◯ ◯ ◯ ◯ ◯ (1 2 3 4 5)

## Bersiva Xaçepirsa Hejmara 41’an

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | O | M | E | R | X | A | W | E (6) | R | ■ |
| 2 | Ş | Î | M | A | ■ | S | A | B | A | T |
| 3 | Î | R (2) | Î | M | ■ | A | N | A | M (3) | A |
| 4 | N | ■ | D | ■ | X | ■ | ■ | ■ | ■ | ■ |
| 5 | ■ | D | ■ | H | U | Y (5) | ■ | Î | D | Z |
| 6 | ■ | M | ■ | Î (4) | F | A | ■ | D | P | A |
| 7 | N | ■ | R | ■ | U | ■ | ■ | ■ | ■ | ■ |
| 8 | R | U (1) | D | Z | ■ | R | Ê | W | A | S |
| 9 | Û | N | E | R | ■ | O | M | A | T | A |
| 10 | H | E | S | E | N | S | E | B | A | ■ |

Peyva veşartî: ◯ ◯ ◯ ◯ ◯ ◯ (1 2 3 4 5 6)

# Sudoku

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | | 4 | 7 | | 5 | 6 | 8 | |
| | 8 | 6 | | | | 3 | 7 | |
| 3 | 7 | | | | 1 | | 9 | |
| 8 | | | 6 | 4 | | | | |
| | | | 2 | 8 | 3 | 1 | 6 | 4 |
| 4 | | 2 | | 1 | 7 | | 3 | |
| 6 | 5 | | | 7 | | 9 | 4 | 8 |
| 7 | 3 | 9 | | 5 | 8 | 2 | 1 | 6 |
| | | | | 9 | | 7 | 5 | |

**Ji bo serrast kirina “Sudoku” wan xalên jêrîn li berçav bigirin**

**1. Hejmarên 1-9’ê di rêza serjêr de dubare nabin.**
**2. Hejmarên 1-9’ê di rêza çeprast de dubare nabin.**
**3. Hejmarên 1-9’ê di nava stûneke 3×3 de dubare nabin.**

## Bersiva Sudoku a Hejmara 41’an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 3 | 7 | 1 | 6 | 8 | 5 | 9 | 4 | 2 |
| 6 | 9 | 5 | 7 | 2 | 4 | 1 | 3 | 8 |
| 8 | 2 | 4 | 9 | 3 | 1 | 5 | 7 | 6 |
| 7 | 1 | 9 | 5 | 6 | 8 | 3 | 2 | 4 |
| 5 | 8 | 3 | 2 | 4 | 9 | 6 | 1 | 7 |
| 2 | 4 | 6 | 1 | 7 | 3 | 8 | 5 | 9 |
| 9 | 6 | 7 | 3 | 5 | 2 | 4 | 8 | 1 |
| 4 | 3 | 2 | 8 | 1 | 6 | 7 | 9 | 5 |
| 1 | 5 | 8 | 4 | 9 | 7 | 2 | 6 | 3 |

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne
Agirî di ser înternetê:
http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php

Navnîşana derveyî welat: PDKI . C/O : A.F.K. 17, Avenue d'Italie
75013 PARIS – France
E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

## Di Dadgeha Mafê Mirovan Ya Ewropayê De Dewleta Turkiyê Mehkûm Bû

Li gor Ajansa nûçeyan ya "AFP", Dadgeha mafê mirovan ya Ewropayê dewleta Turkiyê mehkûm kir.

Li gor rapora "AFP", Dadgeha mafê mirovan ya Ewropa roja sêşem 27.06.2006'an Turkiye mehkûm kir û da zanîn, liv û riftara Turkiyê derheq 4 girtiyên ku ketibûne gireva birçîbûnê, reftarek ne mirovane tê hesibandin.

Li gor vê raporê, van 4 girtiyên ku du ji wan canê xwe ji dest dane, li meha Septembra 2000'an ji bo nîşandana nerazîbûna xwe li hember qanûna nû ya girtîgehan, ketibûne gireva biçibûnê û zêrevanên zîndanî jî bi vê hêcet û mihanê ku ew dixwazin birevin, her çar girtî li textê nexweşxanê girêdabûn.



Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewropa di hukmekê de ragihand ku li gor berçavgirtina rewşa wan girtiyan û nebûna delîveya van girtiyan ev gava Turkiyê berevajî xala Sêyan ya Konvansiyona mafê mirovan ya Ewropa tê hesabê ku reftarên nemirovane qedexe dike.

## "Qasimlo Le Rêbazî Da Zîndowe"

Pirtûka **"Qasimlo Le Rêbazî Da Zîndowe" (Qasimlo di rêbaza xwe de zindî ye)**, hilbijartiyek ji nivîs û wergerandinên birêz **Qadir wirya** ye li ser kesayetî, tekoşîn, raman û dîtinên Dr. Qasimlo.

Pirtûk ji destpêkek û çar feslan pêk hatiye. Beşa yekem pêkhatiye ji hilbijartiyek ji nivîsên Qadir Wirya li yad û bîranîna Dr. Qasimlo de. Fesla duyem ji çend gotûbêj û gotarên Dr. Qasimlo pêk hatiye. Fesla sêyem li ser gotin û bîr û rayên kesayetiyên cur bi cur e li ser Dr. Qasimlo. Fesla çarem ji bo gotar û mijarên pêwendîdar bi dosya terora Dr. Qsimlo hatiye terxan kirin. Pişka dawîn ya pirtûkê jî




albûmek ji wêneyên Dr. Qsimlo di xwe de cih dide. Pirtûka navhatî ji 294 rûpelan û ji aliyê dezgeha weşan a "Awêr" li Hewlêr hatiye weşandin.

Desteya Nivîskar ya Agirî bona vî karê piroz, mandînebûn û destxweşiyê ji kekê Qadir Wirya dike û jê re hêbiya serkevtinê dixwaze.

Zanist û Teknolojî

## Ip Telefon, Xerca Telefon Kirinan Heta Nîvê Dadibezîne

**Hamid Durûdî**




Kovara **"PC för Alla"** ku li li welatê Swêdê derdikeve, ceribandinek li ser panzdeh cihan di pêwendî tevî telefon ji rêya hêla pan ya înternetê de pêk aniye. Di encam de **"Phonzo"** ji hemûyan çêtir û erzantir û kompaniya mezin ya **"Telia"** wekî şîrketa herî nebaş û giran hate naskirin. Niha êdî bona vê çendê ku ji rêya înternetê telefon bihê kirin, ne hewce ye kompyuter were bi karanîn, niha alaveke nû û biçûk derketiye ku di navbera pirîza hêla înternetê û telefona normal ya malê de tê girêdan û bikarîner her wekî caran telefonê dike, lê êdî weke caran aboneya telefonê nade.

Piraniya ew kesên ku ji bo vê ceribandinê bi wan re hatiye axavtin, dibêjin heta seh bi vê çendê nekirine ku ji rêya înternetê ve telefon kirine. Cudahiya van cure telefon kirinane tevî sîstema belaş ya **"Skype"**ê eva ye ku telefona înternetî wekî wê bi tevahî ne belaş e.

Bi giştî heke ji rêya telefonê ve telefon bihê kirin, tevî telefonkirinê bi awayê asayî xerca mehane ya telefonê, hetanî nîvê kêm dibe. Başiyeke din ya wan cure hêlane eva ye ku bi ciheke taybet ya coxrafî ve pabend û girêdayî ninin û mirov dikare bi hemû hêleke înternetê li seranserî cîhanê de girê bide, bi awayekê ku ew kesên niştecihê welateke din in yan ji bo sefera havînê ji bo welateke din diçin, dikarin telefonên xwe bi heman hejmar telefona welatê xwe bi xwe re ji bo ciheke dilxwaz bibin.

